

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 154 – Sibat 2018**
*Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882*
*www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. www.facebook.com/bureaukurde*

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

***ÇILE 2018***

### KONFÊRANS

***14. 01. 2018: Pêşwaziya penaberan li Ewropa***



**François Sant'Angelo**, yasanas li bal UNIA, konfêransek bi navê "Rewşa pêşwaziya penaberan li Ewropa" kir:

Pêşwaziya kesên ku mafê penaberiyê li Ewropa dixwazin bê ramyareke (siyaset) hevbeş û bê piştgirî tê kirin. Sazendeyên ewropî nikarin kotayan (rêje, nisbet) li ser her welatî farz bikin. Ev penaber tên birin navendên pêşwaziyê ku li sînorên derveyî Yekîtiya Ewropî ne. Ev êgoîsma dewletan dihêle ku bîrên (fikr) populîst (ên nêgatîf) di nav xelkên ewropî de belav bibin. Ev xelkên ku ji vê pirsê ne agahdar in xwe digirin (ji biyaniyan re ne vekirî ne). Ev nebûna ramyareke hevbeş (siyaseteke hevrayî) ferzend dide qaçaxçiyan û kesên ku bazarganiya mirovî dikin. Siyasetên "tund, lê mirovî" tên xwestin, lê kesên ku alîkariya penaberên bê war dikin bi tilliyan tên nîşan dan (tên tawanbar kirin).

Çend jimar:

° Ji 2014 de, ji kêmasî ve 15.400 kesên ku dixwest ku bigihêjin welatên ewropî li nav derya mirin.

° Nêzîkî 20.000 kesan di 2017 de mafê penaberiyê li Beljîka dixwest (+5%). Bêtirînên wan Sûrî û piştre Afxanî û Iraqî ne. Û li paş van

her sê netewahiyan, Êrîtrêyî û Filistînî tên. Tirk gelek kêm bûne, lê Kongolî bêtir bûne.

° Maweyên (muddet) lênêrîna dosyayên kesên ku mafê penaberiyê dixwazin li bal CGRA (Commissariat Général aux Réfugiés) kêm dibin. Hîn 3.000 dosya li bal wê mane.

° Jimara vîzayên mirovî yan bijîjkî (tibbî) yên demkurt bilind bûye (nemaze ji bo Sûriyan), lê dayîna mafên rûniştinê ji van kesan re her sal kêm dibe (1.205 di 2016 de). Divê ku meriv zanibe ku kesê ku vî mafî dixwaze, divê ku 350 € bide (ev yek heta nuha 9,8 milyon € ji xezîneya dewletê re anîne).

## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***19.01.2018: Rêsêpsyona (koktêl) Bruxelles-Accueil***

Rêxistina Bruxelles-Acceuil (Brussel-Onthaal) 20 saliya xwe li navenda çandî De Markten pîroz kir. Wê kes û rêxistinên ku ji bo merivên ku mafê penaberiyê dixwazin wergerandinan (tercume) dikin vexwendin (dawet kirin).

Di destpêkê de, ev kes peyivîn: Marianne Scheppers, birêvebir; Bob Pleysier, serok, û Bianca Debaets, sekretera dewletê ya Bruksêlê. Wan bangî vebûna ji kesên din re û bihevrejiyanê kir. Piştre, sofreyeke rojhilatî ya gelek dewlemend hat pêşkêş kirin û muzîkjen lîzt. Eywana bedew a eynikan (Spiegelzaal) tijje bû û hewa gelek şen bû.

Li ber derî, broşureke ku xebata gelek mezzin a vê rêxistinê şirove dike hat pêşkêş kirin: Di 1997 de, Bruxelles-Acceuil bi nêzîkî 100 wergêran (tercuman) re kar dikir. Di 2016 de, ev jimar gihajt 1.233. Jimara zimanên ku di 2016 de dihatin bi kar 78 bû, lê di 2017 de gihajt 219.

***21. 01. 2018: Xurîniya KES***

Rêxistina KES (Kurdish European Society), şaxa Beljîka, xurîniyek (xwarina serê sibê) li eywana cêjnan a şaredariya Zellik (Gemeentelijke feestzaal Zellik), li nêzîkî Bruksêlê, pêk anî. Ev yek, ji bo piştgiriya bi hezaran qurbanên erdeheja li Kurdistna Îranê (li bultenên me yen buhurî binêre).

Serokê KES-Beljîka, Kahraman Evsen, û Mazlum Deli, Mîdya û Karîn Raşîdova xweşhatinê ji mêvaran re xwest û ew vexwendin xwarineke gelek dewlemend û xweş, ku ji aliyê van her du xuşkan, Mîdya û Karîn, hati bû amade kirin.

***27.01.2018: Xwepêşandan li dijî Tirkiyê***






Weka li herderê Ewropa û ciyên din, Kurdan li dijî serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan xwe pêşan da. Ev yek ji bo ku leşkerê wî bê rawestan bajarê Efrînê û derora we, li Kurdistana Sûriyê, bombe kirin (li jêr binêre). Li Bruksêlê, xwepêşandan li meydana Schumanê, li hemberî sazendeyên ewropî, hat kirin. Ew ji aliyê Hevbendiya Niştimanî ya Kurd li Sûriyê hat pêk anîn.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKÊ DE

***Êrîş li Şirnexê***

***Di 01 Çile 2018 de***, leşkerê tirkî êrîşî bingeheke hêzên çekdar ên PKKê, HPG (Hêzên Parastina Gel), li bajarokê Qilabanê, yê girêdayî Şirnexê, kir. 6 serbaz (esker) hatin kuştin.

Piştî çend rojan, bombeyek li ser leşkerê tirkî, li çiyayê Gebarê, li nêzîkî Şirnexê, teqiya. Efserek (zabit) birîndar bû.

Qedexekirina hatûçûnê li 11 ciyên parêzgeha Şirnexê, ***ji 29 Çile heta 12 Sibat***, hat daxuyandin (îlan kirin). Berê 4 rojan, parêzgarê (walî) Şirnexê hatûçûnê li 7 ciyan, li dora bajarê Şirnexê, daxuyandi bû.
*(rudaw.net, 06, 09 û 28.01.2018)*

***Dirêjkirina Rewşa Awarte li Kurdistanê***

***Di 17 Çile 2018 de***, parêzgarê tirk dirêjkirina 3 mehan a rewşa awarte (istisnaî) li Kurdistana Tirkiyê daxuyand. Roja din, Parlementê ew pejirand (qebûl kir). Ev cara 6mîn e ku ev rewşa awarte tê daxuyandin.
*(rudaw.net, 18.01.2018)*

***Bombekirina Kurdistana Iraqê***

***Di 29 Çile de***, firokeyên tirkî çiyayên Qendîl û Asosê, li nêzîkî Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, bombe kirin, ji bo lidûketina PKKê. Fermandarê leşkerê tirkî daxuyand ku li wan deran 11 bingehên PKKê hatin têk birin (xerab kirin).
*(rudaw.net, 29.01.2018)*

### PARLEMENTERÊN KURD LI ZÎNDANÊ

***Leyla Birlik***



Dadgeha Şirnexê parlementera kurd Leyla Birlik, ji partiya HDP, bi salek û 9 meh zîndan tawanbar (mehkûm) kir. Ew bi piçûkkirina (heqaret) serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan hatiye tawanbar kirin. Ewê parêzerên (avukat) wê wê biparêzin.
*(rudaw.net, 03.01.2018)*

***Idris Baluken***

***Di 04 Çile 2018 de***, dadgeha Amedê (Diyarbekir) parlementerê kurd Idris Baluken, ji partiya kurdî HDP, bi 16 sal û 8 meh zîndan tawanbar kir. Ew bi endambûna PKKê hatiye tawanbar kirin.

Di 04. 11. 2017 de, 12 parlementerên vê partiyê, her du hev-serokên wê, Selahattin Demirtaş û Figen Yüksekdağ, jî di nav wan de, hati bûn bin çav kirin û piştre 8 ji wan hati bûn zîndan kirin.
*(rudaw.net, 04.01.2018)*

***Osman Baydemir tê girtin û piştre berdan***

Parlementerê Riha (Urfa), yê partiya HDP, Osman Baydemir, li Izmirê hat ragirtin. Wî xwe ji zîndanê, bi sîstema SEGBIS, parast. Piştre, ew hat azad kirin.
*(rudaw.net, 07.01.2018)*

**PARLEMENTEREKE KURD TÊN AVÊTIN**

***Di 13 Çile 2018 de***, parlementera kurd Leyla Zana, ji partiya HDP, ji karê xwe hat avêtin, ji bo ku ew beşdar ne bû civînên parlementa tirkî.
*(rudaw.net, 13.01.2018)*

**BI SEDAN KES JI SEDEMA EFRÎNÊ TÊN RAGIRTIN**

***Di 21 Çile de***, li Istanbulê, komeke çapemeniya civakî li dijî êrîşên leşkerê tirkî li ser navçeya Efrînê, li Kurdistana Sûriyê (li jêr binêre), riswa (protêsto) kir. Polîs 13 kes ragirtin.

***Di 23 Çile de***, 46 kes li bajarên cihê yên Kurdistanê û Tirkiyê hatin binçav kirin, ji bo ku wan ji bo Efrînê xwe pêşan da bû (meşiya bûn). Ji van kesan, 23 endamên partiya kurdî HDP ne.

Bi ser de jî, bi sedan kes hatin ragirtin, ji bo ku wan li ser torên xwe yên civakî bûyerên Efrînê weşandi bûn.

***Di 30 Çile de***, li Ankara, polîs ket nav malên endamên Encumena Navendî ya Yekîtiya Bijîjkên Tirk (TTP) û 11 bijîjk (doktor), ku ji wan serokê vê rêxistinê, ragirtin. Ew bi kirina daxuyaniyekê li dijî êrîşên li ser Efrînê hatin tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 23-25.01.2018)*

**BANGA HUNERMENDÊN KURD JI BO EFRÎNÊ**

Hemî partiyên kurdî bi hev re bangî Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî kir ku qedexekirina firrînên li ezmana Kurdistana Sûriyê daxuyîne (îlan bike). Ev in navên van partiyan: HDP, DBP, HAK-PAR, OSP, PAK, PDK Bakur, PDK-Tirkiye, PSK, Tevgera Azadî.

Di 22 Çile 2018 de, li ser xwestina Fransa, Encumena Navneteweyî ya Ewlehiyê civiya bû, lê tu biryar ne stendi bû.

Li konfêransa Jinên Birêvebiriya Navçeyî, ya Partiya Herêmên Dêmokratîk (DBP), hev-seroka vê partiyê, Serpil Kemalbay, li Amedê daxuyand ku êrîşa li ser Efrînê ne li dijî têrrorîsmê, lê vegirtin (işgal) bû.
*(rudaw.net, 29 û 30.01.2018)*

**AVAHIYA PARTIYA "HDP"ê TÊ ŞEWITANDIN**

Avahiya partiya kurdî "HDP"ê, li Istanbulê, ji aliyê kesên nenas hat şewitandin. 11 gûmanbar (kesên bi şubhe) hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 29.01.2018)*

**RAPPOR LI SER AZADIYA ÇAPEMENIYÊ**

Înîsyatîva Rojnamevanên Azad rapporek li ser pelixandina mafên rojnamevanan li Tirkiyê di 2017 de weşand:

187 rojnamevan hatine bin çav kirin. 58 hatine zîndan kirin. Ji wan 15 hatin azad kirin, 18 dema ku bûyer dişopandin hatin êrîş kirin, 1 hat revandin û bi mirinê hat tehdîd kirin û 1 hat kuştin. 35 buroyên çapemeniyê hatin girtin. Hebûnên rojnameyên ku di 2016 de hati bûn girtin hatin firotin. 3 kanalên têlêvîzyona Turksat hatin girtin. Destûrên 5 kalanê têlêvîzyonî hatin kişandin. Malpera entêrnêtê ya 37 weşanxaneyan hat girtin. 5 rojnamevan hatin sirgûn kirin. 25 rojnamevan ji kar hatin avêtin. Kartên 100 rojnamevanan hatin kişandin.
*(rudaw.net, 03.01.2018)*

**DÎWARÊ AMEDÊ "SUR" HILDIWEŞE**

Ji sedema şerrê di navbera hukûmeta tirkî û şervanên kurd ên YPS (PKK) de, dîwarê dîrokî yê bajarê Amedê (Diyarbekir), Sur, hêdî hêdî hildiweşe. Rêxistin gazin jê dikin û bangî desthilatan dikin ku pê xerîk (mijûl) bibin.

Ev dîwarê Surê ji 5.000 salan de heye û ji aliyê UNESCO weka bermahiya (mîras) mirovahiyê hatiye nas kirin. 33 şehriyarî (medeniyyet) li Amedê desthilatdar bûn û, her yek ji wan bi awayê xwe, ev dîwar nuh kir. Lê ji 3 salan de, ew gelek têk çûye (xerab bûye) û 6 ji taxên wî ji hatûçûnê re qedexe ne.

82 burcên vî dîwarî hene. Dirêjayiya wî 5.500 m., bilindbûna wî 12 m. û kûrbûna wî 3.50 m. e. Di 1930 de, parêzgarê wê demê, Hasan Faiz Ergün, biryar stendi bû ku wî bicarek hilweşîne, bi behaneya firehkirina bajar. Lê arkêolog, Prof. Dr. Albert Louis Gabriel, karên hilweşandinê rawestandi bûn.
*(rudaw.net, 19.01.2018)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**ERDHEJ**
Careke din erdhejeke sivik li navçeyên Hewlêr û Suleymaniyê bû. Û li navçeyên din ên Iraq û Îranê, û li Kurdistana Îran û Iraqê jî, pê hat hest kirin.
*(rudaw.net, 11.01.2018)*

**ŞINGAL**

***Vegirtin (işgal)***
Fermandarê hêzên kurdî yên ji ola êzdî "Êzîdxan", Heyder Şeşo, daxuyand ku piştî vegirtina Şingalê ji aliyê leşkerê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, di 16. 10. 2017 de, rewşa Şingalê guherî: Mîlîsên şîî didizzin, leşkerê iraqê xalên çavdêriyê (kontrol) danîn û para xwe ji tiştên ku ji aliyê Heşdî Şe'bî hatine dizzîn distîne. Bi ser de jî, hêzên kurdî yên girêdayî PKKê, (YBŞ), tê de digerrin.

Di vê hêza Êzîdxanê de 7.000 şervan, ku ji wan 1.000 girêdayî Pêşmergeyên hukûmeta Kurdistanê ne, hene.
*(rudaw.net, 02 û 13.01.2018)*

**KERKÛK**

***Du kuştî***
***Di 08 Çile 2018 de***, kesên nenas êrîşî du cuhanên kurd kir û ew kuştin. Piştî vegirtina Kerkûkê ji aliyê mîlîsên şîî û leşkerê iraqê di 16. 10. 2017 de, tawanên (cinayet) weha gelek bûne.
*(rudaw.net, 09.01.2018)*

***Êrîşa DAIŞê: 3 kuştî***
***Di 12 Çile de***, şervanên Dewleta Islamî êrîşî gundekî bajarokê Ebasî, li navçeya Hewîcê, kir. Jinek û her du kurrên wê hatin kuştin.
*(rudaw.net, 09.01.2018)*

***Tirkmenekî şîî dibe muxtarê Xurmatû***
***Di 18 Çile de***, hêzên tirkmenî yên şîî, yên bi navê "Bedr", muxtarê kurd ê bajarokê Xurmatû, Şelal Ebdul, rakir û li ciyê wî Tirkmenek, Hesen Zeynelabidîn, danî. Di 16. 10. 2017 de, Xurmatû ji aliyê mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî hati bû êrîş kirin. 8.000 malbatên kurd jê reviya bûn.
*(rudaw.net, 18.01.2018)*

***Polîs ciyê leşker digire***
Li ser biryara hukûmeta iraqî, leşker û feramandariya tevgeran xwe ji Kerkûkê kişand û li ciyê wan 7.500 polîs hatin danîn.

Heta nuha, rewşa Kerkûkê asayî (normal) ne bûye û gelek ji rûniştevanên wê jê reviyane û di rewşên gelek zor de dijîn.
*(rudaw.net, 31.01.2018)*

**SULEYMANIYE**

***Bombekirin***
***Di 08 Çile de***, hêlîkoptêrên leşkerê iraqî 3 gundên bajarokê Zinanê, li navçeya Germiyanê, bombe kirin. 6 Tirkmenên şîî, ku ji wan jin û zarok, birîndar bûn.

Piştî vê yekê, hêzên şîî yên Heşdî Şe'bî, bi hêlîkoptêran, gundên Şoraw, Keçole û Pêlkanê bombe kirin. Tu qurban ne bûn.
*(rudaw.net, 08.01.2018)*

***Teqîn***
***Di 11 Çile de***, dema ku zarokan li barajokê Şoreşê dilîzt, teqînek bû. 3 zarok hatin kuştin.
*(rudaw.net, 11.01.2018)*

**TEQÎN LI BEXDADÊ**
***Di 15 Çile de***, 2 teqînên mezzin ên xwekuj li Bexdadê bûn. 26 kes hatin kuştin û 70 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 15.01.2018)*

**HALABCA**

***Şerr***
***Di 22 Çile de***, li çiyayê Bemo, şerr di navbera hêzên ewlehiyê yên Kurdistanê û komeke çekdarên nenas bû. Piştî nîv demjmêrekê,

endamên vê komê reviyan û çekkên xwe hiştin. Ewlehiya kurdî gûman (şubhe) dike ku ew endamên Dewleta Islamî ne.
*(rudaw.net, 23.01.2018)*

**VEKIRINA RIYA DUHOK-NÎNEWA**
Piştî 4 sal girtin, ji sedema şerrê li dijî Dewleta Islamî, riya di navbera Duhok û Nînewa (li nêzîkî Mûsilê) ji nuh de hat vekirin.
*(rudaw.net, 08.01.2018)*

**PARKEK LI MÛSILÊ**
Parka Mûsilê 3 salan, ji sedema şerrê li dijî Dewleta Islamî, girtî bû. Nuha zarok tê de dilîzin.
*(rudaw.net, 18.01.2018)*

**SEREDANÊN HEWLÊR-BEXDADÊ**
***Di 13 Çile de***, şandek ji Kurdistanê, bi serokatiya wezîrê hundir, Kerîm Şingalî, çû Bexdadê û rastî wezîrê iraqî yê hundir, Qasim Erejî, hat.

***Di 15 Çile de***, şandek, bi serokatiya sekreterê giştî yê encumena wezîran a Iraqê, Mihdî Elaq, çû Hewlêrê, ji bo giftûgokirina pirsên firokexaneyan, deriyên sînorî, bendavan û tiştên din.

Ji aliyê kurdî, ev kes beşdar bûn: Wezîrê hundir ê Kurdistanê, Kerîm Şingalî; wezîrê veguhastinê, Mewlud Bawermurad, û berpirsiyarên din.
*(rudaw.net, 16.01.2018)*

**KONFÊRANSA ÇAPEMENIYÊ YA BERZANÎ**
Piştî civîna hukûmeta Kurdistanê, serokwezîr Nêçîrvan Berzanî konfêranseke çapemeniyê kir û tê de got ku giftûgoyên di navbera hukûmeta Kurdistanê û ya Iraq de dest pê kir û ku ew li ser vekirina firokexane û deriyên sînorî yên Kurdistanê, pêwendiyên bi Tirkiye û Îranê re, û li ser pirsên din, weka mûçe (meaş), pêtrol … peyivîn. Û wî got jî ku ewê civînên din jî di navbera her du aliyan de bibin.
*(rudaw.net, 18.01.2018)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Tirkiye***
Serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya konsulê Tirkiyê li Hewlêrê, Hakan Karaçay, kir. Wan pêwendiyên di navbera Tirkiye û Kurdistanê de, û pirsên di navbera Bexdad û Hewlêrê de, giftûgo kirin.

Berpirsiyarê pêwendiyên derve yên Kurdistanê, Fellah Mustafa, û berdevkê hukûmeta Kurdistanê, Sefîn Dizeyî, jî amade bûn.
*(rudaw.net, 04.01.2018)*

***Brîtanya Mezzin***
***Di 15 Çile de***, balyozê (sefîr) Brîtanya Mezzin li Iraqê, John Wikle, çû Hewlêrê û rastî serokwezîr Nêçîrvan Berzanî hat. Wan rewşa Kurdistan û Iraqê, û hilbijartinên nêzîk li Iraqê, giftûgo kirin.

Balyoz careke din Berzanî vexwend (dawet kir) Brîtanya Mezzin. Serokwezîra brîtanî, Theresa May, di 12. 12. 2017 de ji Berzanî re têlêfon kiri bû û ew vexwendi bû seredana welatê xwe.
*(rudaw.net, 16.01.2018)*

***Ostralya***
***Di 24 Çile de***, balyozê Ostralya li Iraqê, Cristopher Langman, li Hewlêrê ji aliyê Mesrûr Berzanî, rawêjkarê (muşawir) Encumena Ewlehiya Kurdistanê, hat pêşwazî kirin. Wan xurtkirina pêwendiyên di navbera Kurdistan û Ostralya de giftûgo kir. Balyoz piştgiriya xwe ji Kurdistaneke pêşketî, di çarçeveya destûra iraqî de, nîşan da. Û wan şerrê li dijî têrrorîsmê jî giftûgo kir.
*(rudaw.net, 24.01.2018)*

**SEREDANÊN DERVE**

***Vatikan***


***Di 12 Çile 2018 de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, rastî Papa Francesco li Vatikanê, li Roma, hat. Wan rewşa Kurdistanê û ya Filleyan giftûgo kirin. Papa spasiya hukûmet û gelê Kurdistanê, ji bo pêşwazîkirina penaberan bi giştî û filleyan bi taybetî, kir. Piştre, Berzanî rastî serokwezîrê Vatikanê, Kardinal Pietro Parolin, hat.

Bi Berzanî re, serokê buroya serokatiya Kurdistanê, Fuad Huseyn, û nimînendeya (temsîlcî) hukûmeta Kurdistanê li Îtalya, Rêzan Qadir, hebûn.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 12.01.2018)*

***Bexdad û Tehran***
***Di 20 Çile de***, serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, tevî şandekê, çû Bexdadê. Ew rastî serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, hat. Wan rewşa ramyariyî (siyasî) û ewlehiyî ya herêmê û çarekirina pirsên di navbera Hewlêr û Bexdadê de, li ser bingeha destûra iraqî, giftûgo kirin. Bi Berzanî re ev kes hebûn: Cîgirê wî, Qubad Talabanî; serokê buroya serokatiya Kurdistanê, Fuad Huseyn; û berdevkê hukûmeta Kurdistanê, Sefîn Diezyî. Di heman rojê de, ew çû Tehranê.

***Di 21 Çile de***, li Tehranê, Berzanî rastî serokê îranî, Hasan Rûhanî, hat. Evê dawîn jê re got ku divê ku Kurdên Iraqê mafên xwe yên rewa, di çarçeveya destûr û yekbûna axa Iraqê de, bistînin. Û wî got jî ku karsazên îranî amade ne ku li Kurdistanê projeyan pêk bînin.

Dema ku Berzanî vegeriya Hewlêrê, konfêranseke çapemeniyê li ser seredanên xwe kir û xemgîniya xwe ji bo êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, (li jê binêre) ravekir û got ku ew hêvî dike ku ev pirs gelek zû were çare kirin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 21 û 22.01.2018)*

***Lutkeya Aborî ya Cihanî li Davosê***
***Di 24 Çile de***, li Davosê, li Swîsra, Lutkeya (civîna bilind) Aborî ya Cihanî bû. Serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, tevî şandekê beşdarî wê bû.

Berê rojekê, Berzanî, tevî kesên din, ji aliyê avakerê vê Forumê, Klaus Schaw, û jina wî hat vexwendin şîvekê.

Şanda ku bi Berzanî re bû ji van kesan pêk hati bû: Qubad Talabanî, cîgirê Nêçîrvan; Dr Fuad Huseyn, serokê encumena serokatiya Kurdistanê; Aştî Hewramî, wezîrê çavkaniyên siruştî (tebîî); Sefîn Dizeyî, berdevkê hukûmeta Kurdistanê, û Fellah Mustafa, berpirsiyarê buroya pêwendiyên derve.



Li derveyî konferansan jî, Berzanî rastî van kesahiyan hat: Wezîrê amerîkî yê karên derve, Rex Tillerson; alîkarê sekreterê giştî yê UNê, Jeffery Feldman; Şahê Urdunê Abdullah; serokê partiya tunisî Nahza, Reşîd Enûş; serokwezîrê Ermenistanê, Karen Karapêtyan; serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî; wezîrê fransî yê karên derve, Jean-Yves Le Diran; alîkara serokwezîrê Swêdê, Isabella Lovin, û serokwezîrê herêma Vlaanderen (Flandre), ya Beljîka, Geert Bourgeois.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 24 û 25.01.2018)*

**BEXDAD RAKIRINA RÊFÊRANDUMÊ DIXWAZE**
***Di 04 Çile 2018 de***, berdevkê hukûmeta iraqî, Se'dî Hedîsî, di daxuyaniyeke çapemeniyê de daxuyand ku bitenê rakirina (hilweşandin) encamên rêfêranduma li ser serxwebûna Kurdistanê dikare bihêle ku dyalogek di navbera Bexdad û Hewlêrê de dest pê bike.
*(rudaw.net, 04.01.2018)*

**LIHEVKIRINA IRAQÎ-BRÎTANÎ LI SER PÊTROLA KERKÛKÊ**
***Di 19 Çile de***, wezîrê iraqî yê pêtrolê, Jebbar Luxeybî, di konfêranseke çapêmeniyê de daxuyand ku wî lihevkirinek li ser derxistina pêtrola Kerkûkê bi şirketa brîtanî ya pêtrolê, British Petroleum Company, re wajo (imza) kir.

Serokê şaxa Rojhilata Navîn a vê şirketa brîtanî, Michael Townshend, daxuyand ku ev bîr ê mezzintirîn li cihanê tê dîtin.

Di 1927 de, vê heman şirketa brîtanî û ya fransî "Total" ev bîr li Kerkûkê dîti bû.
*(rudaw.net, 19.01.2018)*

**BÊTIR GAZ LI KURDISTANÊ**
Şirketa gaz a tirkî-brîtanî, Genel Energy, daxuyand ku gaza parêzgehên Suleymaniye û Hewlêrê 78% ji ya ku wan pêşbînî (texmîn) dikir bêtir e. Vê nûçeya erênî (pozîtîf) buhayê gazê 8.7% bilind kir.

**ROJA ÇANDÎ YA TIRKMENAN**
***Di 24 Çile*** ya her salekê de, Tirkmen Roja xwe ya Çandî pîroz dikin. Berê 40 salan, hukûmeta iraqî ew nas kiri bû, lê piştre wê ew qedexe kir. Ji çend salan de, Tirkmen vê cêjnê li Hewlêrê, li Kurdistanê, pîroz dikin.

Îsal, Mala Tirkmenan roja xwe bi semînerekê dest pê kir, lê wê cêjnê rakir (ilxa kir), ji sedema êrîşên li dijî vê civatê li Kerkûk û Efrînê.

Birêvebirê vê Mala Tirkmenan, Geylan Alti, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku li Kurdistanê Tirkmen endamên encumena parêzgarî û yên 13 dibistanan li Hewlêrê ne. Loma, rewşa wan li Kurdistanê ji ya Kerkûk û navçeyên din ên Iraqê baştir e.
*(rudaw.net, 24.01.2018)*

**AMERÎKA ALÎKARIYA PÊŞMERGE DIKE**
Alîkarê wezîrê Pêşmerge, Serbest Lezgîn, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Amerîka alîkariyeke 365 milyon dolaran ji Pêşmerge re şand. Di 2016 de jî, wê ji wan re 450 milyon dolar şandi bûn. Ev yek, li gora lihevkirineke ku li Hewlêrê, di 12. 07. 2016 de, ji aliyê alîkarê wezîrê Pêşmerge, Kerîm Şingalî, û cîgira wezîrê amerîkî yê parastinê, Elisa Slotkin, hati bû wajo (imza) kirin).
*(rudaw.net, 25.01.2018)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

**ERDHEJ**
Erdhej li Îran û Kurdistanê dajo (dewam dike). Ji 10 heta 12. 01. 2018, ji 100 hejên sivik bêtir li Kirmanşan û Ilamê, li Kurdistanê, (5.6 richter) bûn.
*(rudaw.net, 12.01.2018)*

**DU DERIYÊN SÎNORÎ JI NUH DE TÊN VEKIRIN**
***Di 01 Çile 2018 de***, hukûmeta îranî daxuyand ku wê, bi şev, her du deriyên sînorî yên Perwîzxan û Hacî Umranê, yên di navbera Kurdistana Îran û Iraqê de, ji nuh de vekirin. Lê Kurd dibêjin ku deriyê Hacî Umranê hîn ne vekirî ye.

Ev derî di 14.10.2017 de, weka bertekek (rêaksyon) li dijî giştpirsiya (rêfêrandum) li ser serxwebûna Kurdistan Iraqê, ku di 25.09.2017 de bû, hati bûn girtin.
*(rudaw.net, 02 û 03.01.2018)*

**XWEPŞANDAN LI ÎRANÊ**




***Ji 31.12.2017 heta 02.01.2018***, li Sersalê û piştre, xwepêşandanên li dijî rejîma îranî, li bajarên ciyê yên îranî û li Kurdistanê bûn: Tehran, Kerec, Ehwaz, Kirmanşan, Îze, Takestan … Xwepêşandiyan êrîşî ciyên fermî (resmî) kirin û polîs bersîv da. 25 kes hatin kuştin û 3.700 jî hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 06 û 09.01.2018)*

**QEDEXEKIRINA ZIMANÊ INGILÎZÎ**
Serokê encumena perwerdeyê, Mehdî Nawîd, li têlêvîzyonê daxuyand ku hînkirina zimanê ingilîzî li dibistanên fermî û li yên arizî (xusûsî, privés), ku li derveyî welat in, qedexe ye.
*(rudaw.net, 08.01.2018)*

**LEŞKERÊ ÎRANÎ ŞERRÊ DAIŞÊ DIKE**
***Di 27 Çile de***, komeke çekdar, ku tê gotin ku girêdayî Dewleta Islamî ye, li çiyayê Bemo, li nêzîkî gundê Ezperê, yê girêdayî bajarokê Ezgilê, li parêzgeha Kirmanşanê, li Kurdistana Îranê, bi cî bûye. Di dirêjayiya şevê de, leşkerê îranî ev çiya bombe kir û 3 ji wan kuştin. Tê gotin ku ev heman (eynî) koma ku berê çend rojan li bajarokê Bemo, yê bajarê Helebca, li Kurdistana Iraqê, hati bû dîtin bû.
*(rudaw.net, 28.01.2018)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***DÊR EL-ZOR***

***1 DAIŞ tê kuştin***
Yekîneyên Li Dijî Têrrorê, yên partiya kurdî YPG, "mîr"ê Dewleta Islamî, Huseyn Ayid El-Welîd, kuşt. Ew berpirsiyarê qirkirina ku li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, di 27.07.2016 de bû bû ye. Di vê qirkirinê de, 58 sîvîl hati bûn kuştin û 177 jî birîndar bû bûn.
*(rudaw.net, 01.01.2018)*

***27 DAIŞ tên kuştin***
***Di 07 Çile 2018 de***, Dewleta Islamî êrîşî gundê El-Behranê kir. Piştî şerrên giran, şervanên kurd û ereb ên "HSD" (Hêzên Sûriya Dêmokratîk), 27 ji şervanên wê kuştin. Bi ser de jî, wan 3 firokeyên wê yên sîxuriyê (casûsîtî) xistin xwarê û jimarek ji çek û teqemeniyên wê stendin.
*(rudaw.net, 08.01.2018)*

***151 DAIŞ tên kuştin***
***Di 10 Çile de***, şerrên tund li bajarokê Xeranîcê bûn. 151 şervanên Dewleta Islamî ji aliyê HSDê hatin kuştin.
*(rudaw.net, 10.01.2018)*

***17 DAIŞ tên kuştin***
Dewleta Islamî daxuyand ku wê erebeyeke bombekirî li ser şervanên kurd û ereb ên "HSD", li nêzîkî Dêr El-Zorê, avêt û 20 ji wan kuştin.

Bi ser de jî, HSD daxuyand ku wan li gundê Hecînê êrîşî Dewleta Islamî kir, 17 şervanên wê kuştin û dest danî ser kargeheke (fabrîka) çekkan.
*(rudaw.net, 13.01.2018)*

***REQQA***

***14 DAIŞ tên kuştin***
YPG'yên kurd êrîşî navendeke Dewleta Islamî li nêzîkî bajarê Reqqa kir. 14 DAIŞ hatin kuştin.
*(rudaw.net, 05.01.2018)*

**RAHÊNAN LI KURDISTANA IRAQÊ**
Rahênana (tedrîb) 223 Pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê (şervanên partiyên kurdî ku ne girêdayî PYD ne) li Kurdistana Iraqê kutah bû (xelas bû). Heta nuha, 52 ji wan hatin kuştin û 12 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 11.01.2018)*

**ENCUMENEKE SÎVÎL LI REQQA**
***Di 11 Çile de***, civîna 2mîn a Encumena Sîvîl a Reqqa (ya partiya kurdî PYD) li xwaringehekê (rêstoran), li Reqqa, bû. 2 hev-serok, ji bo encumenên yasayî (huqûqî) û bicîkirinê (tenfîzî), hatin hilbijartin.
*(rudaw.net, 12.01.2018)*

## TIRKIYE EFRÎNÊ BOMBE DIKE



Leşkerê tirkî li sînorê sûrî çekkên giran, 15.000 serbaz (esker) û polîs, û çend navendên tendurustiyê (saxî) bi cî kirin. Hukûmeta sûrî riswa (protêsto) kir.

Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan bê rawestan daxuyand ku ewê Tirkiye ji nişkan ve êrîşî Efrînê bike.

Berpirsiyarê karên Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî, Thomas F. Beale, daxuyand ku ewê hêzeke 30.000 çekdaran, bi navê "Hêzên Ewlehiya Sînoran", li Kurdistana Sûriyê were bi cî kirin. Û berdevkê wezareta amerîkî ya parastinê "Pentagon", Eric Pahon, jî got ku welatê wî rahênana (tedrîb) Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD" dike.

***Di 14 Çile 2018 de***, dereng bi şev, wezaretga tirkî ya karên derve daxuyand ku ev hevkariya Hevbendiya Navneteweyî û YPG'ên kurdî, bê hevkariya Tirkiyê, şaşiyek bû.

***Di 15 Çile de***, wezareta sûrî ya karên derve jî li dijî vê hevkariya jorîn riswa (protêsto) kir.

***Di 15 Çile de*** jî, wezîrê rûs ê karên derve, Sergey Lavrov, li dijî avakirina vê hêzê riswa kir.

PYD û Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" li dijî vê yekê riswa kir û bangî civata navneteweyî kir ku bilive.

Li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, nêzîkî 70 ronakbîrên kurd, ereb û fille beşdar bûn panêlekê li ser êrîşên Tirkiyê.

***Di 16 Çile de*, bi şev, leşkerê tirkî û şervanên dijberiya sûrî dest bi bombekirina bajarokên Şêrawa, Şera û Cindirîsê, û gundên ku girêdayî Efrînê ne, kir. Hêzên kurdî "YPG" bersîv da.**

Li Kurdistana Sûriyê, û li Ewropa, Kurdan li dijî Tirkiyê xwe pêşan da (meşiyan).

***Di 20 Çile de*, bi şev, Tirkiyê, bi hevkariya komeke dijberiya sûrî "Leşkerê Azad ê Sûrî", dest bi bombekirina Efrînê û derdorên wê, kir. *7 sîvîl hatin kuştin û 15 jî birîndar bûn.*** Wê navê vê êrîşê kir "Şaxa Zeytûnê", ji bo ku Efrîn bi zeytûn û xwarinên din dewlemend e. Rûniştevan ber bi şkeft û kîleran (binerd) reviyan.

15.000 serbazên (esker) Leşkerê Azad ê Sûrî û 10.000 serbazên tirk beşdarî vê tevgerê bûn.

***Di 23 Çile de***, di 3 rojan de, 53 serbazên tirk hatin kuştin, lê Tirkiyê got ku bitenê 2 hatine kuştin! Piştre, di ***26 Çile*** de, Tirkiyê got ku 14 serbazên wê hatine kuştin û 130 jî birîndar bûne.

Ji aliyê kurdî, di ***26 Çile*** de, 43 YPG, ku ji wan 8 jin "YPJ", û 59 sîvîl, hatin kuştin û 143 sîvîl birîndar bûn.

Nimînendeyê (temsîlcî) UNICEFê li Sûriyê, Frans Equiza, daxuyand ku ji sîvîlên ku li parêzgeha Efrînê hatin kuştin 11 zarok hene û ku 125.000 penaber li bin konan dijîn. Wî ji xwe pirsî gelo çima cihan li ser vê babetê bêdeng dimîne.

Xwendekarên zanîngeha Efrînê xwîn da birîndaran.

Birêvebiriya nexweşxaneya Avrînê li Efrînê daxuyand ku heta nuha 50 sîvîl, ku ji wan 14 zarok û 9 jin, hatin kuştin. Û wê got jî ku nîvê kuştî û birîndaran Erebên ku ji Heleb û navçeyên din hati bûn û ku ber bi Efrîn û derdora wê reviya bûn in.

Tirkiye entêrnêt û têlêfon jî birrîn. Ew hêzên kurdî yên "YPG" weka dewama PKKê dibîne û ditirse ku ewê Kurdistana Tirkiyê vegirin (işgal bikin). Di axaftinên xwe yên dubarekirî de, serokê tirk Erdoğan YPG "têrrorîst" bi nav dike.

Leşkerê tirkî ji aliyê komeke sûrî ya erebî, ya bi navê "Leşkerê Azad ê Sûrî", tê piştgirî kirin.

Di daxuyaniyeke nivîskî de, feremandarê YPG got ku Rûsya bi qasî Tirkiyê tawanbar (bi sûc) e, ji bo ku wê tutişt ne kir ji bo ku wê nehêle ku êrîşî Kurdistana Sûriyê bike (Rûsya bingehên wê yên leşkerî li vê navçeyê hene). Bi ser de jî, Aldar Xelîl, serokê "Tevdem"ê, di hevpeyvînekê de got ku Rûsya ji YPG xwest ku Efrînê ji hukûmeta sûrî re vegerînin, lê ku Kurdan ev yek nakin û ku ewê şerr bikin. Û wî got jî ku hinek berê êrîşên tirkî, Rûsya hêzên xwe ji navçeya Efrînê kişandi bûn. Fermandarê YPG, Sîpan Hemo, got ku Rûsya xiyaneta Kurdan kir.

Birêvebiriya Xweser, a partiya kurdî YPG, bangî cuhanan kir ku xwe bigihînin hêzên wê, ji bo ku li hemberî êrîşên Tirkiyê rawestin. Û wê ji Amerîka, Rûsya û hemî cihanê xwest ku piştgiriya wan bikin.

Dijberiya kurdî ku ne girêdayî PYG ye, ENKS (Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê) ev êrîşên tirkî riswa kir û bangî cihanê kir ku bêdeng nemîne.

Serokê sûrî, Beşşar El-Esed, daxuyand ku ev êrîş beşek ji ramyara (siyaset) Anakara, ku di roja pêşîn ya borana (krîz) sûrî de, piştgiriya komên têrrorîst li Sûriyê kiri bûn, in. Wî ev yek ji serokê encumena stratêjîk a pêwendiyên derve ya Îranê, Kemal Xerazî, ku li Şamê rastî wî hat, got.

Di civîneke partiya xwe de, serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan got ku ewê leşkerê wî tevgera xwe ji Munbicê heta sînorê Iraqê (tevayiya Kurdistana Sûriyê) bajo (dewam bike).

Birêvebiriya YPG'ên kurdî bangî hukûmet û leşkerê sûrî kir ku bikevin nav Efrînê, ji bo parastina rûniştevanan. Wê got jî ku ev navçeye beşeke ku nayê perçe kirin ji Sûriyê ye.

***Di 24 û 28 Çile de***, leşkerê tirkî navenda êlêktrîkî ya bendava Meydankê, li nêzîkî bajarokê Şera, 12 km ji Efrînê, bombe kir.

***Di 27 Çile de***, leşkerê tirkî êrîşî bajarokê Şehba, yê girêdayî Efrînê, kir. HSD heta serê sibê bersîv da. 13 serbazên tirk û endamên Leşkerê Azad ê Sûrî hatin kuştin. Tirkiyê hêzên xwe bêtir kirin û ew ji Kilisê, li Tirkiyê, derbasî Ezazê, li Sûriyê, bûn. Ezaz di nav destên Leşkerê Azad ê Sûrî, komeke dijbaeriyê ku girêdayî Tirkiyê ye, de ye. Li wê derê, alên tirkî hatine bilind kirin.

Ezaz li Bakurê Rojavaya Sûriyê û 20 km ji Helebê ye. Di 2014 de, jimara rûniştevanên wê 360.000 bû. Piraniya wan Ereb, Kurd û Tirmen bûn. Nuha, Ezaz li bin çavdêriya (kontrol) Leşkerê Azad ê Sûrî û Tirkiyê ye.

***Di şeva 27 Çile de***, leşkerê tirkî, bê rawestan, çiyayê Qestelê û gundên Ezazê, ku li hemberî Kilis in, bombe kirin. YPG'ên kurdî xwe ji eniyên xwe, ku li vî çiyayî ne, kişand û bersîv da.

YPG ji leşkerê sûrî xwest ku bikeve navçeya Efrînê, ji bo parastina rûniştevanên wê ji leşkerê tirkî.

Li gundê Hemamê, ku li sînorê sûrî-tirkî ye, şervaneke kurd a YPJ, Avêsta Xabûr (navê wê yê rast Zilûx Hemo ye) êrîşeke xwekuj kir. Wê xwe avêt ser tankeke tirkî, ew teqand û jiyana xwe hunda kir.

***Di 28 Çile de***, ajansa sûrî ya fermî SANA daxuyand ku di 9 rojan de, 86 sîvîl hatin kuştin û 195 birîndar bûn.

***Di 28 Çile***, demjimêr 23 heta 3'ya serê sibê, firokeyên tirkî bajarokên Qestel, Raco, Cindirês û Şêrawa bombe kirin. Şerrên tund li girê Qestelê, yê çiyayê Bersaya, bûn.

***Di 29 Çile de***, gundê Zormixarê, li rojavaya Efrînê, hat bombe kirin.

***Di 29 Çile de***, rojnamevaneke YPJ, Avrîn Mehsûm, hat kuştin. Ev rojnamevana duyemîn e ku tê kuştin. Yeke din birîndar bû. Di nîvê şevê de, hêlikoptêrên tirkî gundê Hemamê, girêdayî Cindirêsê, bombe kir.

Li navçeya Reco, leşkerê tirkî girê Kevirê Ker û gundê Bafelonê, li rojhilata Efrînê, ku di navbera gundên Qestel Cindo û Qitmê de ye, bombe kirin.

Ev leşkerê tirkî û hevbendên wî li çiyayê Êzgehê û li dora her du bajarên Emera û Mamila bi cî bûn. Li

navçeya Bilbilê, ev leşkerê tirkî li gundê Baliya, yê li nêzîkî sînor, bi cî bû.

Li gora YPG, heta nuha 308 serbazên tirk û yên komên dijberiyê ku girêdayî Tirkiyê ne, û 43 şervanên YPG, hatin kuştin.

Alîkara sekreterê U.N.ê, Ursula Mueller, daxuyand ku ew sîvîl in ku tên kuştin û birîndar kirin û ku heta nuha ji 15.000 kesan bêtir bûne penaber.

***Di 31 Çile de***, firokeyên tirkî taxa Tirindê, ya Efrînê, bombe kir. Zarokekî 9 salî hat kuştin û 11 sîvîl birîndar bûn.

**Ji 12 heta 31 Çile 2018, 60 sîvîl hatin kuştin. Ji wan 21 zarok û 12 jin. Û 195 kes jî birîndar bûn.**

***Bang ji cihanê re***

Li ber avahiya Birêvebiriya Xweser, hev-serokê kantona Efrînê, Osman Şêx Îsa, bangî cihanê kir ku li hemberî êrîşên Tirkiyê li ser Efrînê bêdeng nemîne. Wî daxuyand ku ji 8 rojan de leşkerê tirkî Efrînê bombe dike, lê ku wî nikari bû buhustekê jî pêş de biçe, ku gelê Efrînê xwe diparêze û ku bi dehan sîvîl hatine kuştin û ciyên dîrokî hatine têk birin (xerab kirin).

*(rudaw.net, avestakurd.net, 15-28, 30.01.2018)*

***Piştgiriya Qamişlî***

Xwepêşandaneke mezzin ji bo piştgiriya Efrînê li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, bû. Nêzîkî 10.000 kes, ku ji wan Kurd, Ereb û Suryanî, û nimînendeyên partiyên ramyariyî (siyasî) yên cihê, beşdarî wê bûn.

*(rudaw.net, 30.01.2018)*

## LEŞKERÊ TIRKÎ QAMIŞLÎ BOMBE DIKE

***Di 23 Çile de***, di demjimêr 8.30 a serê sibê de, leşkerê tirkî bajarê Qamişlî, li rojhilata Kurdistana Sûriyê, ku ji Efrîna ku li rojava ye gelek dûr e, bombe kir. 2 zarok birîndar bûn.

*(rudaw.net, 24.01.2018)*

## LEŞKERÊ TIRKÎ MUNBICÊ BOMBE DIKE

***Ji 24 heta 25 Çile***, leşkerê tirkî bajarê Munbicê ji şevê heta serê sibê bombe kir. Wî 27 firoke û tank bi kar anîn û ev êrîş ji Kilis û Reyhanliyê, yên li Kurdistana Tirkiyê, kirin. Di navbera Kilis û Efrînê de 12 km hene.

Wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, ji Amerîka xwest ku pêwendiyên xwe bi *"rêxistinên têrrorîst"* re bibirre û tavil (pirr zû) xwe ji Munbicê bikişîne.

*(rudaw.net, 25 û 27.01.2018)*

## SÎXUREKÎ TIRK LI EFRÎNÊ TÊ RAGIRTIN

Di dema lêgerîneke mezzin de, servîsên ewlehiyê yên kurdî li Efrînê sîxurekî (casûs) servîsên dizzî yen tirkî ragirt.

*(rudaw.net, 05.01.2018)*

## PENABER NETEWAHIYA TIRKÎ DISTÎNIN

Di mehên dawîn de, 150 penaberên ji Kurdistana Sûriyê, ku li Amedê (Diyarbekir), li Kurdistana Tirkiyê ne, netewahiya tirkî stend. Ew derçuyên zanîngehan, xwendekar û karsaz (businessmen) in. Bi hezaran kesên din li benda stendina karta nasnameyê (carte d'identité) ne.

*(rudaw.net, 07.01.2018)*

## LE KURDISTANÊ BÊTIR KAR HEYE

Ji dema borana (krîz) sûrî de, gelek kargeh hatin girtin û çûn navçeyên aram ên Kurdistana Sûriyê, ku tê de aşîtî heye.

*(rudaw.net, 20.01.2018)*

## PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN

***Di 29 Çile de***, servîsên ewlehiyê "Asayiş", yên Efrîn û Girkê Legê, mangirtineke (grêv) ENKSê (Encumena Niştimanî ya Kurdê li Sûriyê, ku ne girêdayî PYD ye), ji bo piştgirîkirina Efrînê, qedexe kir.

*(avestakurd.net, 29.01.2018)*

## HELWESTÊN LI DERVEYÎ WELAT : LI "NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ BINÊRE"

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**TIRKIYE ÊRÎŞÎ EFRÎNE DIKE**

**BERTEK (rêaksyon):**

***Îran***
Wezîrê îranî yê karên derve got ku ew bi xemgînî bûyerên Efrînê dişopîne û ji Tirkiyê xwest ku Sûriyê venegire (işgal neke).

***Ronakbîrên rojavayî***
Ronakbîrên rojavayî û partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdistana Tirkiyê dest bi kampanyakê li dijî Tirkiyê kir.

***Partiyên Kurdistana Tirkiyê***
Partiyên ramyariyî yên Kurdistana Tirkiyê leşkerê tirkî riswa (protêsto) kir: Partiya Sosyalîst a Kurdistan (PSK), Partî Dêmokratî Kurdistan-Bakur (PDK-Bakur), Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) û Tevgera Azadî (Hereketa Azadî).

Parlementerê kurd ê HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan), Osman Baydemir, got ku ev tevgera leşkerê tirkî ne "tevgera şaxa zeytûnê" ye, lê *"tevgereke şandina kefenan ji dayikên vî gelî re"* ye.

***Mangirtina birçîbûnê ya girtiyên jin li Tirkiyê***
9 parlementerên jin ên kurd, ên partiyên DHP û DBP, ku li zîndanê ne, 3 rojan mangirtineke (grêv) birçîbûnê kir: Figen Yüksekdağ, hev-seroka partiya HDP; Aysel Tuğluk, alîkara Figen; Çağlar Demirel, cîgira serok; Burcu Çelik Özkan, Gülser Yıldırım; Gülten Kışanak, hev-şaredara Amedê; Nurhayat Altun, hev-şaredara Dersîmê; Edibe Şahin, hev-şaredara berê ya Dersîmê, û Sebahat Tüncel, hev-seroka partiya DBP.

***Kurdistana Iraqê***
Serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de êrîşên Tirkiyê li ser Efrînê şermezar kirin. Wî tê de got ku li gora ezmûnên (tecrube) vê navçeyê, pirs bi şerr girantir dibin û divê ku ew bi riyên aşîtiyane bên çare kirin.

***Kurdên Îranê***
***Di 23 Çile de***, çalakvanên kurd ji şaredarê Urmiyê, li Kurdistanê, xwest ku destûr bide wan ku li hemberî balyozxaneya (sefaretxane) Tirkiyê xwe pêşan bidin (bimeşin). Lê wî xwestina wan red kir.

***Di heman rojê de***, 172 mamosteyên zanîngehên parêzgeha Sinê ev êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê riswa (protêsto) kirin û ji hukûmeta îranî û civata navneteweyî xwest ku tecrube bikin ku wan bidin rawestandin.

***Ji berê,*** piraniya partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdistana Îranê li dijî van êrîşên Tirkiyê riswa (protêsto) kiri bû.

***Rûsya***
Koordinatorê pêwendiyên derve yên parlementa rûsî, Reslan Mamidov, got ku Kurdên Efrînê ketin nav kemînekê (xef, piège). Û wî got jî ku hukûmeta sûrî ji wan re pêşniyar kiri bû ku sînor û sazendeyên hukûmî yên vê navçeyê radestî wê bikin, lê ku Kurdan ev yek ne pejirand (qebûl ne kir), ji bo ku wan bawer dikir ku ewê Amerîka wan biparêze. Li dawiyê, Mamidov got ku Amerîka berjewendiyên (menfeet) xwe, ne yên Kurdan, diparêze.
*(rudaw.net, avestakurd.net, Çile 2018)*

***Amerîka***
Berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve, Heather Nauert, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ew ji bo rewşa Efrînê xemgîn e û ku ew helwesta Tirkiyê têdigihêje (fehm dike).

Nauert got jî ku di demên dawîn de, gelek axaftinên têlêfonî di navbera Amerîka û Tirkiyê de bûn û ku pêwendiyên pêşîn ku wê bixwe, li zîrveya aborî ya cihanî li Davosê, kirin bi serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî,

û piştre bi serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, re bûn.
*(rudaw.net, 25.01.2018)*

Fermandareke jin a YPG'ên kurdî li Sûriyê, Nesrîn Abdullah, Amerîka tehdîd kir û got: *"Eger parastina Efrînê ne karê we be, û ku ew li derveyî desthilata we be, îcar emê hêzên xwe ji Dêr El-Zorê, ku hîn jî tê de bi hezaran şervanên Dewleta Islamî hene, bikişînin û emê ne amade bin ku şerrê wan bikin".*
*(avestakurd.net, 25.01.2018)*

Li ser kuştina sîvîlan ji aliyê leşkerê tirkî, berdevkê wezareta amerîkî ya parastinê "Pentagon", kolonêl Robert Manning, got ku wî ev yek nizani bû û ku ewê tecrube bike ku çareyekê bibîne! Û wî got jî ku Tirkiye endameke NATO ye.
*(avestakurd.net, 31.01.2018)*

***Banga Kurdan ji Almanya re***

***Di 25 Çile de***, şandeke ENKSê (Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê) 3 caran çû seredana wezareta almanî ya karên derve: 1) Berpirsiyarên servîsa Rojhilata Navîn. 2) Berpirsiyarê Sûriyê, Robert Rod. 3) Alîkara berpirsiyarê buroya serokwezîr Angela Merkel ji bo Rojhilata Navîn. Wê ji wan xwest ku tecrube bikin ku êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê rawestînin û piştgiriya pirsa kurdî li Sûriyê bikin.
*(rudaw.net, 26.01.2018)*

***Xwepêşandan li 4 welatên Ewropa***

***Di 27 Çile de***, bi hezaran Kurd li Kölnê, li Almanya, û li London, Bruksêl û Parîsê, ji bo Efrînê xwe pêşan da. Wan got ku Rojava piştgiriya wan li dijî Dewleta Islamî kir, lê ku ew li hemberî Tirkiyê bêdeng dimîne.
*(rudaw.net, 27 û 28.01.2018)*

***Balyozê tirk li Iraqê***

Balyozê Tirkiyê li Bexdadê, Fatih Yıldız, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku tevgera leşkerê tirkî li Efrînê şerrekî li dijî PKKê ye (YPG'ên Kurdistana Sûriyê şaxa sûrî ya PKK ne) û ku PKK li 4 welatan, bi navên cihê şerr dike. Û wî got jî ku welatê wî girîngî dide Kurdistana Iraqê, ku ew yek ji hevsiyên (cîran) wî yên girîngtirîn e, lê ku divê ku ew di nav Iraqeke yekgirtî de bimîne.
*(rudaw.net, 29.01.2018)*

***U.N.***

Alîkara sekreterê giştî giştî yê U.N.ê û berpirsiyara alîkariya mirovî, Ursula Mueller, li Encumena Ewlehiyê daxuyand ku heta nuha, 15.000 sîvîl neçar bûn ku ji navçeya Efrînê birevin û bibin penaber. Û wê got jî ku wê bihîst ku birêvebiriya xweser a vê navçeyê nahêle ku sîvîl jê derketin.
*(rudaw.net, 31.01.2018)*

## ÎRAN Û KURDISTANA ÎRANÊ

### *PIŞTGIRIYÊN NAVNETEWEYÎ*

***Partiya Sosyalîst a Kurdistana Tirkiyê***

Partiya Sosyalîst a Kurdistanê "PSK" daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de piştgiriya xwe ji Kurdistana Îranê û gelheyên din ên vî welatî re nîşan da (li jor binêre). Û wê bangî hemî hêzên dêmokratîk ên Kurdistana Tirkiyê kir ku heman tiştî bikin.

***Amerîka***

Serokê amerîkî Donald Trump daxuyand ku pêwîstiya gelê Îranê bi xwarin û azadiyê heye û ku dem hatiye ku tişt li vî welatî biguherin.

Buroya çapemeniyê ya Saraya Sipî jî daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de piştgiriya xwe ji gelê îranî re nîşan da û got ku mafê wî heye ku dengê xwe bide bihîstin.

***Di 02 Çile 2018 de***, balyoza Amerîka li bal U.N.ê, Nikki Haley, konfêranseke çapemeniyê kir û tê de ji Encumena Ewlehiyê û Encumena Mafên Mirov xwe ku li ser vê babetê bicivin.

Li ser Sûriyê, wezîrê amerîkî yê karên derve, Rex Tillerson, li Enstitutuya Hooverê, ya zanîngeha Stanfordê, peyivî. Wî got ku heta jinavbirina Dewleta Islamî, ewê welatê wî xwe ji Sûriyê nekişîne û ku ewê tê de hebûna xwe ya diplomatîk û leşkerî bihêle.

***Yekîtiya Ewropî***
Buroya Pêwendiyên Derve ya Yekîtiya Ewropî piştgiriya xwe ji xwepêşandanên li Îranê re nîşan da. Wê got ku di pêwendiyên wê bi Îranê re de, vê Yekîtiyê hergav mafên mirov weka girîngtirîn xal dîtiye û ku ewê di şopandina rewşê de dewam bike.

***Sûrî***
Ronakbîrên ereb, kurd û yên din piştgiriya xwe ji xwepêşandanên li Îranê re nîşan da. Wan hukûmeta îranî tawanbar kir ku ew hemî Rojhilata Navîn ber bi şerrekî olî û nijadî dibe.

***Kurdên Sûriyê***
Rêxistina kurdî TEV-DEV (Tevgera Civata Dêmokratîk) jî daxuyaniyek li ser vê babetê kir.

***Revenda li Ewropa***
Xwepêşandanên piştgiriyê li Fransa, Beljîka, Almanya û Brîtanya Mezzin bûn.

**ALMANYA**

***Sûriyek êrîşî jin û mêrekî êzdî dike***
Li bajarê Bielefeldê, Sûriyekî ereb bi kêr êrîşî jin û mêrekî Kurd ên êzdî kir û ew birîndar kirin. Selman Ehmed Ismaîl û Hediye Osman ji Kurdistana Iraqê hatine. 5 zarokên wan hene û li Almanya weka penaber dijîn. Êrîşker ji aliyê polîs hat ragirtin.
*(rudaw.net, 07.01.2018)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Jineke DAIŞ tê ragirtin***
***Di 12 Kanûn 2017 de***, hêzên Kurdistana Sûriyê "YPG" Emilie Konig, endameke Dewleta Islamî, ragirt. Ew ji netewahiya fransî ye û ji aliyê hemî welatên cihanê yek ji kesên metirsîdartirîn (bi tehlike) tê dîtin.
*(avestakurd.net, 09.01.2018)*

**BELJÎKA Û YEKÎTIYA EWROPÎ**

***Wezîrê îranî yê karên derve li Bruksêlê***
***Di 11 Çile de***, wezîrê îranî yê karên derve, Muhammad Cawad Zarîfî, li Bruksêlê rastî wezîrên karên derve yên Almanya, Fransa, Brîtanya Mezzin û Beljîka, û Federica Mogherini, berpirsiyara bilind a pêwendiyên derve yên Yekîtiya Ewropî, hat. Wan çêkirina çekkên atomî ji aliyê Îranê giftûgo kir.

Berê rojekê, di 10 Çile de, ev wezîr li Mosko rastî hevkarê xwe yê rûs, Sergei Lavrov, hat. Wan lihevkirina atomî, ku di 2015 de ji aliyê Îran, Amerîka, Çîn, Fransa, Brîtanya Mezzin, Rûsya û Almanya hati bû wajo (imza) kirin giftûgo kir.
*(rudaw.net, 11.01.2018)*

***Iraq nahêle ku wezîrê beljîkî yê parastinê biçe Kurdistanê***
Nimînendeyê hukûmeta Kurdistana Iraqê li bal Yekîtiya Ewropî, ku li Bruksêlê ye, Dilawer Ajgeyî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku hukûmeta iraqî ne hişt ku wezîrê beljîkî yê parastinê, Steven Vandeput, biçe Kurdistanê. Wezîr dixwest ku seredana serbazên (esker) beljîkî li Iraq û Kurdistanê bike.

Piştî vê yekê, hukûmeta beljîkî ji balyozê (sefîr) iraqî xwest ku vê helwestê zelal bike û çapemeniya beljîkî li ser wê peyivî.

Ev ne cara yekemîn e ku hukûmeta iraqî nahêle ku berpirsiyarên bilind biçin seredana Kurdistanê. Di Mijdar 2017 de, wê ne hişti bû ku wezirê alman ê parastinê, Zigmar Gabriel, biçe wê derê. Loma, wî seredana xwe ji Iraqê re ilxa kir.

Piştî giştpirsiya (référendum) li ser serxwebûna Kurdistanê, ku di 25 Îlon 2017 de bû, hukûmeta iraqî Kurdistan ceza kir. Yek ji van cezayan, girtina firokexaneyên wê bû.

Di dema şerrê li dijî Dewleta Islamî de, Beljîka welatê yekemîn bû ku ji Kurdistanê re rahêner û rawêjkarên leşkerî şandin, ji bo ku rahênana (tedrîb) Pêşmerge bikin.
*(rudaw.net, 12.01.2017)*

***Reynders: Divê ku rola Kurdan li Sûriyê hebe***
Serokê dijberiya sûrî, Nesir El-Herîrî, çû Bruksêlê û rastî wezîrê beljîkî yê karên derve, Didier Reynders, hat. Piştre, wan konfêranseke çapemeniyê pêk anî. Li ser êrîşên leşkerê tirkî li

dijî Efrînê, Reynders got ku divê ku Kurd bi awakî girîng beşdar bibin giftûgoyan.
*(rudaw.net, 17.01.2018)*

**RÛSYA**

***Rûsya li dijî HSD'yên kurdî li Sûriyê***
Li konfêranseke çapemeniyê li Mosko, berdevka wezareta rûsî ya karên derve, Mariya Zaxarova, daxuyand ku rewşa Reqqa (paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê) xerabtir bûye, ku encumenên cihî (mehellî) ku tê de ji aliyê "HSD" (Hêzên Sûriya Dêmokratîk, bi serokatiya YPG'ên kurdî) hatine ava kirin li derveyî desthilata hukûmeta sûrî ne û ku Amerîka piştgiriya wan dike.

Di civîneke salane de, wezîrê rûs ê karên derve, Sergey Lavrov, daxuyand ku Kurd beşek ji neteweyî sûrî ne û ku divê ku berjewendiyên wan bên dabîn (te'mîn) kirin. Wî Amerîka, ji bo projeya wê ya parastina sînorên sûrî, rexne kir û got ku ewê pirsa Efrînê çare neke.

***Navberiya Hewlêr û Bexdadê***
Li heman civîna salane ya jorîn, Sergey Lavrov daxuyand ku welatê wî amade ye ku roleke navber, di navbera Hewlêr û Bexdadê de, bilîze, ji bo ku alîkariya wan bike ku pirsên xwe bi dyalogeke niştimanî çare bikin.
*(rudaw.net, 12 û 15.01.2018)*

***Kongreya Sûçî: Kurd ne tê de ne***
***Di 30 Çile 2018 de***, li Sûçî kongreyeke mezzin a navneteweyî li ser rewşa Sûriyê bû. 1.600 kes beşdarî wê bûn, lê Kurd tê ne nîn bûn: Tirkiyê xwesti bû ku partiya kurdî PYD, ya nêzîkî PKKê, beşdar nebe. Ji aliyekî din, ENKSê (Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê, ku negirêdayî PYD ye) ne xwest ku beşdarî wê bibe, ji sedema vegirtina (işgal) Efrînê ji aliyê leşkerê tirkî.
*(rudaw.net, 30.01.2018)*

**ERMENISTAN**

***Parlement nijadkujiya êzdî nas dike***
Li konfêranseke çapemeniyê, cîgirê serokê encumena mafên mirov a parlementa Ermenistanê, Rostem Mahmûdyan, ku Kurdekî ji ola êzdî ye, daxuyand ku vê parlementê nijadkujiya (qetliam) Kurdên êzdî, ku li Şingal û derdora wê ji aliyê Dewleta Islamî hati bû kirin, nas kir: *"Parlementa Ermenistanê nijadkujiya Êzdiyan, ku li Iraqê, di 2014 de, ji aliyê komên têrrorîst hati bû kirin, nas û tawanbar (mehkûm) dike"* (Şingal navçeyeke Kurdistana Iraqê ye, lê ew li bin desthilata hukûmeta iraqî ye, ji bo ku li nêzîkî Mûsilê ye. Buroya Kurdî). Û wî got jî ku vê parlementê ji civata navneteweyî xwest ku lêgerînek (ankêt) li ser vê tawanê (cinayet) bike.

Nêzîkî 35.000 Kurdên êzdî li Ermenistê dijîn.
*(rudaw.net, 17.01.2018)*

**AMERÎKA**

***Divê ku Tirkiye êrîşî Efrînê neke***
Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Heather Nauert, ji Tirkiyê xwest ku êrîşî Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, neke û got ku babeta (mewzû') herî girîng Dewleta Islamî ye û ku divê ku hemî alî şerrê wê bikin.

***Centcom: Em ji Efrînê agahdar bûn***
Efserê (zabit) amerîkî Joseph Votel, ji navenda fermandariya leşkerî "CENTCOM", daxuyand ku Tirkiyê agahdarî da bû Amerîka ku ewê êrîşî Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, bike. Û wî got jî ku ew amanca Tirkiyê ji vê yekê nizane û xemgîn e.

Li ser hebûna leşkerê amerîkî li Munbicê, Votel got ku ewê ev leşker xwe jê nekişîne.

***Wezîrê amerîkî yê karên derve***
***Di 22 Çile de***, wezîrê amerîkî yê karên deve, James Mattis, got ku Tirkiye endama NATO ye û ku ji bo çarekirina pirsa Efrînê ewê Amerîka pê re kar bike.
*(rudaw.net, 21, 22 û 30.01.2018)*

***Berpirsiyarekî leşkerî diçe seredana Reqqa***
***Di 22 Çile de***, serokê amerîkî yê Ajansa Pêşdebirina Pêwendiyên Navneteweyî (USAID), Mark Green, çû seredana bajarê sûrî yê Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li vî welatî. Pê re fermandarê hêzên amerîkî, gênêral Joseph Votel, hebû. Wî got ku nuha rewş li wê derê ewqas aram e ku rûniştevanên wê dixwazin ku vegerin malên xwe.

***CIA û Efrîn***
***Di 23 Çile de***, serokê servîsên dizzî yên amerîkî "CIA", Mike Pompeo, li Enstituya American Entreprise axaftinek kir. Ew tê de li ser Efrînê jî peyivî û wî got ku ewê di wê rojê de serokê amerîkî Donald Trump jî li ser wê bipeyive.
*(rudaw.net, 23.01.2018)*

**FRANSA**

***Xwepêşandan li Parîsê li dijî Tirkiyê***
***Di 20 Çile 2018 de***, Kurdên ku li Fransa dijîn li hemberî balyozxaneya (sefaretxane) rûsî li Parîsê xwe pêşan da. Wan ji hukûmeta rûsî xwest ku fişaran (tez'yîq, pressions) li ser Tirkiyê bike, ji bo ku ew êrîşên xwe li dijî Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, rawestîne.
*(rudaw.net, 20.01.2018)*

**KAMPANYEKE NAVNETEWEYÎ**

***Ronakbîr li dijî Tirkiyê li Efrînê***
13 akadêmîk, nivîskar û ronakbîr, ji welatên cihê li cihanê, ku ji wan Noam Chomsky'yê navdar, dest bi kampanyekê ji bo Efrînê kir. Ew wajoyan (imza) li dijî êrîşên leşkerê tirkî berhev dikin û ji Rûsya, Îran û Amerîka dixwazin ku wan nehêlin.
*(rudaw.net, 20.01.2018)*

**ÎRAN**

***Li dijî êrîşên tirkî li Efrînê***
***Di 21 Çile de***, berdevkê wezareta îranî ya karên derve, Behram Qasimî, ji Tirkiyê xwest ku tavil êrîşên xwe li ser Efrînê rawestîne. Û wî got jî ku ev yek dikare komên islamî yê têrrorîst xurttir bike.
*(rudaw.net, 21.01.2018)*

**TIRKIYE**

***Ji sedema Efrînê, nivîskareke jin tê ragirtin***
***Di 22 Çile de***, polîsê tirkî nivîskara T24, Nurcan Baysal, ji bo nivîsên wê li ser êrîşên leşkerê tirkî li dijî Efrînê, bin çav kir.
*(rudaw.net, 22.01.2018)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Banga partiyên kurdî ji bo Efrînê***
Partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî daxuyaniyeke hevbeş li Amedê, ji bo riswakirina êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê, kir: HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan), DBP (Partiya Herêmên Dêmokratîk), KCD (Kongreya Civata Dêmokratîk), OSP (Partiya Azadî û Sosyalîsmê).

***Di 23 Çile de***, partiyên din ên kurdî jî daxuyaniyeke hevbeş li Amedê kir û êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê riswa kirin: Hereketa Azadî, PAK (Partiya Azadî ya Kurdistanê), PDK-Bakur (Parti Dêmokratî Kurdistana Tirkiyê) û PSK (Partiya Sosyalîst a Kurdistan).
*(rudaw.net, 22 û 23.01.2018)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**DANIMARK**

***Pirtûka jineke kurd bêtirîn tê firotin***



Romannivîsa kurd, Sara Umer, romaneke bi zimanê dandimarkî, bi navê "Mirîşo", nivîsî. Jê 50.000 tene hatin firotin û weka pirtûka ku bêtirin hatiye firotin hat bi nav kirin. Li merasîma şahî (qralî) ya Sersalê, nivîskar axaftinek kir.

Ev pirtûk li ser nijadkujiya kurdî bi çekkên kîmyayî "Enfal", ku ji aliyê serokê iraqî Saddam Huseyn, di 1988-1989 de, hati bû kirin dipeyive.

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Bav û kurr di heman polê de***

Yaşar Özden alîkarê birêvebirê servîsa werziş (sport) û cuhaniyê, li bajarokê Dêrxanê, yê girêdayî Mûşê, ye. Ew 56 salî ye û bavê 7 zarokan e. Özden birêvebirina giştî (administration) li zanîngeha Wanê xwendi bû. Nuha, ew, tevî kurrê xwe, diçe fêrên siyaset û birêvebirina giştî li zanîngeha Wanê. Kurrê wî, Özmen, dibêje ku ew ji bo vê yekê gelek dilxweş e û ku, piştre, ewê bi hev re doktora bixwînin.

*(rudaw.net, 02.01.2018)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Navendek ji bo zarokên kêmendam***

Navendek ji bo zarokên kêmendam (handicapés) li Qamişlî vebû. Ew pêşwaziya zarokên kerr, lal, otîst û mejîpaşdemayî dike. 40 zarok diçin vê navendê û 14 mamoste tê de kar dikin.

*(rudaw.net, 12.01.2018)*

**FRANSA**

***2 film li ser jinên êzdî***



Derhênereke fransî, Eva Husson, fîlmek bi navê "Keçên Tavê", li ser jinên kurd ên ji ola êzdî, ku ji aliyê Dewleta Islamî hatine revandin, çêkir. Ewê ev film li fêstivalên girîng ên 2018 bê nîşan dan.

*(rudaw.net, 13.01.2018)*

Derhênereke din a fransî, Caroline Faurest, jî fîlmek bi navê "Mara Sor" çêkir. Ew tê de çîroka keçeke kurd a êzdî, Zara, dibêje.

*(Rudaw.net, 25.01.2018)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

***Zilamekî 100 salî dibe bav!***

Muhammed Hacî Mehmûd nêzîkî 120 salî ye û tendurustiya (saxî) wî baş e. Ew li gundê Ammûrdê, yê bajarê Banê, dijî. 3 caran zewicî ye. Bitenê jina wî ya dawîn hîn dijî û 40 salî ye. Ji 25 zarokên wî, 12 hîn dijîn. Cuhantirînê wan 18 salî ye! Muhammed dibêje ku hest dike ku tendurustiya wî baş e û hîn jî dixwaze ku zarokekî wî hebe, lê ku jina wî naxwaze!

*(rudaw.net, 15.01.2018)*

***Kurdek yek ji mezzintirîn zanayan li cihanê***



Navenda Bingehên Zanyariyî (ISI) Kurdekî Îranê, Dr. Areş Qurbanî Çeqamaranî, yek ji mezzintirîn zanayan li cihanê dest nîşan kir (ta'yîn kir). Ew mamosteyê kîmya li zanîngeha Ilamê, li Kurdistana Îranê, ye.

Heta nuha, 221 gotar û lêgerînên Dr Çeqamaranî li mezzintirîn kovarên zanyariyî (ilmî), û li ser malpera entrênêtê ya ISI, hatine weşandin. Bi ser de jî, gotarên wî, weka çavkanî (références), li cihanê 2.760 caran hatine dest nîşan dan.

*(rudaw.net, 15.01.2018)*

## ALMANYA

***Şanoyeke kurdî di 2017 de baştirîn e***

Navçeya almanî ya Essenê şanoya "Em li benda baranê ne", ya derhênerê kurd Ihsan Usman, "Baştirîn şano di 2017 de" dest nîşan da. Ew li ser pirsên penaberan dipeyive.

Li navçeya Essenê 16 milyon kes dijîn û tê de nêzîkî 40 navendên şano hene.

*(rudaw.net, 18.01.2018)*

## BRAZÎL

***Stranbêjeke jin bi kurdî distirê***

Stranbêja brazîlî Ariane Marqs bi çend zimanan, kurdî jî tê de, distirê. Ew dibêje ku stranên kurdî gelek hestdar in û êşa gel didin hest kirin. Marqs dibêje jî ku piştî şerrê Kurdan li dijî Dewleta Islamî navê wan li cihanê belav bû.

*(rudaw.net, 20. 01. 2018)*

## ÎRAN

***"Workshop"ek li ser deffê***



***Di 25 û 26 Çile de***, muzîkjenê kurd ê navdar Hejar Zehawî li Tehranê, ji bo cara yekemîn, "workshop"eke 2 rojî li ser deffê pêk anî. 120 kes beşdarî wê bûn.

Zehawî bi awakî rêkûpêk (muntazam), bi cillên xwe yên kurdî, beşdar dibe fêstivalên navneteweyî.

*(rudaw.net, 27.01.2018)*

## NORVÊJ

***Pêşniyara Xelata Nobelê ji Pêşmerge re***

***Di 31 Çile de***, li roja dawîn a pêşkêşkirina navên namzedên Xelata Nobelê ya Aşîtiyê, parlementer û wezîrekî dewletê yê norvêjî, Himanshu Gulati,

pêşniyar kir ku Xelata Nobelê ya 2018 ji Pêşmerge re bê dayîn. Wî got: *"Pêşmerge roleke wan a girîng di şerrê li dijî Dewleta Islamî, mezzintirîn dijminê mirovahiyê, de hebû. Eger Pêşmerge li eniyên pêşîn ên şerrê li dijî Dewleta Islamî de xwe feda nekirina, ewê ew (Daiş) îro mezzintir û xurttir biba".* Gulati di 1988 de bûye. Ji riha (esl) hindî ye û endamê Partiya Pêşverû ya norvêjî ye. Ji 2013 de, wezîrê dewletê li wezareta dadê û ewlehiya neteweyî ye.

*(rudaw.net, 31.01.2018)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Jona Mustafa bo hollandî û Chirine Gerits bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Jona Mustafa tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel**